hejmar 58 - Bihar 2016

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravayê kurmancî

Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan
Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## Civîna Hewlêrê

Civîna Kurmancî ya 58an vê carê li Hewlêrê, paytexta başûrê Kurdistanê, di navbera rojên 21 - 28.05.2016an de li dar ket.

Hewlêr bajarekî gelekî kevn e û xwedî dîrokeke dûr û dirêj e. Despêka wê, li gor hindek çavkanîyan, diçe heta 7-8 hezar salî berî niha. Navê wê di dema sumerîyan de wek Urbîlium derbas dibe. Ev nav di dema asûrîyan de bûye Urbîlîm û piştre Arbêla. Bi dû re, di zimanê suryanî de bûye Arbêl, bi erebî Erbîl û ji wir jî di kurdî de bûye Hewlêr /Hevlêr.

Hewlêrê di bin destê sumerîyan, asûrîyan, medîyan, axîmenîdîyan, makedonîyan, partîyan, sasanîyan, selçûq û osmanîyan de roleke mezin lîstîye. Bûye devereke gelekî girîng û stratejîk. Bi wext re bûye bajarekî pirrengî, hembêza xwe ji gelek netewe û dîyanetan re vekirîye. Niha tê de ev pirneteweyî û pirdînî her berbiçav e. Neteweyên cuda cuda û dîn û dîyanetên cihêreng her bi hev re wek bira dijîn. Bajar nimûneyeke gelekî baş ya pêkvejîyanê dinimîne.

Desthilatdarîya kurdî dixebite ku ev pêkvejîyana her berdewam be, hevwelatîyên wê û yên başûrê Kurdistanê her di vê rêyê de têdikoşin û nîşan didin ku ji vê prensîpê nehêne xwarê.

Me bi dirêjahîya civînê ev hewa tenefus kir, di vê atmosferê de, bi kar û xebata xwe ve mijûl bûn. Di gel xeterîyên terorê, gefa Da'işê û krîza aborîyê em bi serbilindî li wir man û bi serbilindî vegerîyan. Lê dilê me ma her li wir, di gel birayên me.

Di vê civînê de li ser babetên têvel yên wek Balindeyên Kurdistanê, Faûna (heywan), Flora (gulûgîya), Termînolojîya pizîşkî, Çêkirina benî, bastêq û helîlan, Hin peyvên kêmnas/ nenas û Peyvên ji pirtûkên Xelîfe Ûsiv hat kar kir.

Ev hevalên han di civînê de beşdar bûn: Rênas Awdal (Zaxo), Mistefa Aydogan (Mêrdîn), Omîdê Mistefayê Celalî (Bazîd), Lezgînê Çalî (Barzan), Elîşêr (Wan), Ehmedê Dirihî (Çewlik), Hemîd Kiliçaslan (Mêrdîn), Eyûb Kiran (Qerejdax), Mehmûd Lewendî (Qerejdax), Emîn Narozî (Batman), Fadil Omer (Dihok), Zinar Soran (Dêrik), Têmûrê Xelîl (Rewan), Îsmaîl Şahîn (Sêmêl), Reşo Zîlan (Agirî).

Encamên xebata civînê li jêrê têne pêvkêş kirin.

# Termsaziya pizîşkî bi kurdî

## - V -

Amadekar: Lezgînê ÇALÎ

| kurdî | turkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| kîmyaçare | kemoterapi | chimiothérapie | chemotherapy |
| kur | erkek çocuk, oğlan | garçon | boy |
| kurî | eksen | **axe** | axis |
| laşnasî | anatomi | anatomie | anatomy |
| mîrxiçik, mîrkute, mîrkutok, xwirîyên avî | suçiçeği | varicelle | chicken pox |
| hinavbînî | endoskopi | endoscopie | endoscopy |
| hinavbînk | endoskop | endoscope | endoscope |
| navdilkulî | endocardit | endocardite | endocarditis |
| neberdêrî | kısırlık | infertilité | infertility |
| neşterkar | cerrah | chirurgien | surgeon |
| neşterkarî | operatörlük, cerrahlık, cerrahlık ilmi | chirurgie | surgery |
| tanedêr | pirojenik olmayan, hararet oluşturmayan | non pyrogène | nonpyrogenic |
| nîşan | işaret | signe | sign |
| nûciwan | genç | adolescent | adolescent |
| nûza | yenidoğan | nouveau-né | neonate |
| nûzayane | neonatal | néonatal | neonatal |
| pizîşkê çavan | göz doktoru | ophtalmologue | ophthalmologist |
| pizîşkîya çavan | göz doktorluğu | ophtalmologie | ophthalmology |
| pankurm | tenya | ténia | tape worm |
| panpejîk | birkaç ülkeye yayılan, yaygın | pandémique | pandemic |
| pizîşkê zarokan | çocuk doktoru, pediyatrist | pédiatre | pediatrist |
| pizîşkîya zarokan | pediyatri, çocuk doktorluğu | pédiatrie | pediatrics |
| pejîk, şof | salgın hastalık | épidémie | epidemy |
| pejîknas | epidemiyolojist | épidémiologiste | epidemiologist |
| pejîknasî | epidemiyoloji | épidémiologie | epidemiology |
| perçivtin, perçifîn | ödem | œdème | oedema |
| perçivtî, perçifî | ödemli | œdémateux | oedematous |
| perdemêjî | beyin zarı | méninge | meninges |
| perdemêjîkulî | menenjit | méningite | meningitis |
| pest | basınç | pression | pressure |
| pesta xwînê | tansiyon | tension | blood pressure |
| pesta çavî | göz tansiyonu | tension oculaire | intraocular pressure |
| pestandî | sıkıştırılmış | pressurisé | pressurized |
| pestandin | sıkmak, basıncını ayarlamak | pressuriser | to pressurize |
| pestpîv | sfigmomanometre, barometre | sphygmomanomètre, baromètre | sphygmomanometer, barometer |
| pis | erkek oğlan | fils | son |
| pişkulî, sîkulî, pişikkulî, satilcan | pnemonit, akciğer iltihabı, zatürye | pneumonie | pneumonitis |
| pizîşk | doktor | docteur | physician |
| pizîşkî | tıbbi | médical | medical |
| pizîşkî | tıp | médecine | medicine (science) |
| riskîyan | sedimantasyon | sédimentation | sedimentation of a solution, sedimentation |
| saxlem, tendurist | sağlıklı | sain, en bonne santé | healthy |
| saxlemî, tenduristî | sıhhiye, sağlık | santé | health |
| şilemenî | sıvı, akıcı | liquide | liquid |
| sinêle, sengele | genç, delikanlı | adolescent | teenager |

| | | | |
|---|---|---|---|
| sinêletî | gençlik, delikanlılık | adolescence | teenage |
| sîngkulî | zatürrye | pneumonie | pneumonia |
| şîrxwerî | bebeklik dönemi | petite enfance | infancy |
| şîrxwer, berşîr, pit | bebek | bébé | infant |
| sorgok | alyuvar | érythrocyte, hématie | erythrocyte |
| sorîlank | dölüt, fetus | foetus | fetus |
| spîgok | akyuvar | leucocyte | leukocyte |
| stewr | steril | stérile | sterile |
| stewrandin | 1. sterize etmek, 2. sterilizasyon | 1. stériliser, 2. stérilisation | 1. sterilize, 2. sterilization |
| stewrî | sterilik | stérilité | sterility |
| şû, mêr | koca | mari | husband |

# Faûna
# Semender, beq, req, kûsî

**Amadekar: Eyûb SÎNAN KIRAN**

**SEMENDER**

| kurdî | latînî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|---|
| semenderê Colemêrgê | *neurergus strauchi* | Hakkari semenderi | salamander de Hakkari | Hakkari's potted newt |
| semender | *salamandra salamandra* | lekeli semender | salamander de feu | fire salamander |
| semenderê Ûrmîyê | *neurergus crocatus* | Urmiye semenderi | salamander d'Ourmieh | Lake Urmia newt |
| semenderê Kurdistanê | *neurergus microspulotus* | Kürdistan semenderi | salamander du Kurdistan | Kurdistan newt |



***Semenderê Colemêrgê***
*Neurergus strauchi*



***Semender***
*Salamandra salamandra*



***Semenderê Ûrmîyê***
*Neurergus crocatus*



***Semenderê Kurdistanê***
*Neurergus microspulotus*

**BEQ, REQ Û KÛSÎ**

| kurdî | latînî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|---|
| beqa bibelalûk | *bufo bufo* | sigilli kurbağa | crapaud commun | common toad |
| qurqurk | *bufo viridis* | gece kurbağası | crapaud vert | the european green toad |
| beqa dara | *hyla arborea* | ağaç kurbağası | rainette verte | common tree frog |
| beqseydik, beqa kesk | *hyla savignyi* | yeşil kurbağa | rainette européenne | european tree frog |
| beqa golan, beqbelûsk | *rana ridibunda* | ova kurbağasi | grenouille rieuse | marsh frog |
| beqa xetxetî | *rana camerani* | şeritli kurbağa | grenouille zébrée | stripped frog |
| req, sêlak | | su kaplumbağa | tortue d'eau | pond tortle |
| reqê golan | *mauremys caspica* | hazer çizgili kaplumbağa | tortue de la mer Caspienne | Caspian turtle |
| reqê deqdeqî | *emys orbicularis* | benekli kaplumbağa | cistude | European pond turtle |
| reqê Feratê | *rafetus euphraticus* | Fırat kaplumbağası | tortue d'Euphrate | Euphrates softshell turtle |
| kûsî | *testudo graeca terrestris* | tosbağa | tortue, tortue terreste | common tortoise |



***Beqa bibelalûk***
*Bufo bufo*



***Beq Qurqurk***
*Bufo viridis*



***Beqa dara***
*Hyla arborea*



***Beqseydik, beqa kesk***
*Hyla savignyi*



***Beqa golan, beqbelûsk***
*Rana ridibunda*



***Beqa xetxetî***
*Rana camerani*



***Reqê Golan***
*Mauremys caspica*



***Reqê deqdeqî***
*Emys orbicularis*



***Reqê Feratê***
*Rafetus euphraticus*



***Kûsî***
*Testudo graeca terrestris*

# Hin berhemên ji tirî

**Amadekar: Hemîd KILIÇASLAN**

Ez li mala Hecî Mihemed Bakay bûme mêvan û min pirsa mahsera - miştaxa ji Hecî û xanima wî kir. Mala Hecî li gundê Misûriyê di nav rez û erdê bav û kalên wan de, bi awayekî nûjen hatibû avakirin. Bi dilovanî heciyê (72) heftê û du salî û xanima wî Rûqiye ya ku di heman jiyê de bû, dest pê kirin, ji me re mijara kewdan, miştaxa û çêkirina benî û bastêqê vekirin. Qin bi qinê ve dikirin. Gava min li wan guhdarî kir, ew hest bi min re çêbû ku her wekî ez li nav rez im û me dest bi çêkirina benî - sîncoq û bastêqê kiriye. Carinan xanima Hecî, xwe li gemê dida û dikudand ku benîyên xwe di pelûlê de bike, lê Hecî bergiya wê dibirî û digot “hela raweste em hê nehatine wî delavî”. Her weha me roja 17ê gulana 2016an şevbuhêrkeke bi dilê xwe derbas kir.

Ji xwe tiriyê baş û xweşik di ber re dihêt çinîn û dihere bazarê. Payiza paşîn ew tiriyê ku nehatiye hevdan di mêwê de mayî, ketober dihêt hevdan. Navê vê hevdanê çinîn e. Helbet ew tirî bêtir tiriyê mezrone, yê şîreyê ye û di payiza paşîn de, di mêwê de û wek efara tirî, bi yek qutfên di mêwê de dimînin re ketober dihêne hevdan.

Dema em tiriyê mayî tevî berhev dikin, diçinin, em tînin miştaxa, dixin kîsan an telîsan, diesirînin, diguvêşin, ji bo ew keşmûna mayî baş zuha bibe, em wan guvişkên keşmûnê dixin mengeneyê diguvêşin da av tê de nemîne, zuha bibe.

Ew şîreya ku me ji tirî wergirtî, em dixin neqran. Li gora pirbûna şîreyê em hinek axa sipî dixin nav, tevlê dikin. Ew axa sipî ji bo dawerivandin û sipîkirina şîreyê ye. Bi gotineke din şîreya tirî bi wê axa sipî rafîne dibe. Navekî din yê wê axa sipî, axa dimsê ye.

Em paşê şîreya xwe dikewidînin. Kewidandin nîvkelî kirin e. Di wê nîvkeliyê de, dema gemara di nava şîreyê de ya bi ser dikeve, agir ji binê neqrê vedikişînin, em wê şîreya nîvkelî heta ku sar bibe, bicemide, di nav re tev didin, li hev dixin, bi vî awayî ew gemar dadinisile, xwe bera binî dide.

Dema şîre sar bû, cemidî û gemarê xwe bera binî da, em di ser re ya paqij diparzinînin, em wê şîreya paqij vedigerînin neqreke din, ji nuh ve agir dixin bin. Heta bi kel were, em dikelînin, dema bikele kef bi ser dikeve, em cara duduyan wê kefê ji ser diqeşêrin, em wê qeşartinê bi kevgîrê dikin.

Ger ew şîre ji bo bastêqê be, em hinek ard-arvan tev lê dikin, ya ji bo benîyan be ardê wê hinekî zêdetir e, qalindtir dibe.

Tasa yendo, ew tasa bi çembilê dirêj, ji me re tasa pîvana şîreyê ye. Wê şîreya arvan li nav ketî, ji bo nebe girêk, em di safokekê re diparzinin, li safokê dixin. Em wê şîreya paqij ku di safokê re hatiye parzinandin dîsa dixin neqra, didin ser êgir û heya dikele tev didin. Piştî kel pêket em hêdî, hêdî agir ji binê neqrê dibirin. Carinan em sêlekê dikin navbera êgir û neqrê û carinan em agir ji binî vedikişînin, da zêde nekele û nebe girêk û neşewite.

Dema pelûla me hazir bû, destpêkî em ji bo bastêqê bi kar tînin. Paçikên hêzar an naşor, cabonê baş ku me amade kirine, em du tasên yendo bera ser paçikê bastêqê didin, du kes wê pelûlê bi hosteyî li ser wî paçikî li hev vedigerînin û tenik lê belav dikin. Dema hê pelûl germ e em tenik di paçik didin, em nahêlin qalind bibe. Bastêqa peltenik û sipî ya baş e.

Benî-sîncoq jî bi eynî metodê ye. Pelûla beniya hinekî qalindtir ango tîrtir e. Ji bo tîrtir bibe hinek arvanê zêde dikeve nav. Em berê gwîzên xwe yên malê, ger xwemalî tune bin yên kirrînê, yên qenc em berî şkenandinê demekê dixin nav avê. Di avê de êvarekê an çend saetan dihêlin da ku di şkenandinê de qin hûr nebin. Em gwîzên xwe dişkênin, qinên xwe darvedikin, benikên qin pê ve darvekirî, bi aqûlan ve girêdidin, bi dar de dikin. Aqûl ew darikên serê wan çetelî ne û ji bo bidardekirinê bi kêr in. Li gora qalindbûnê em carekê an çend caran wan gwîzên darvekirî ku aqûl bi serê benikê beniya ve girêdayî, di pelûlê de dikin. Ew pelûla ji ber benî û bastêqê dimîne û nema bi kêr tê bera teştekê an ser siniyekê didin hinekî zuha dikin. Di pey re em bi kêran dîlim dîlimî dikin û wek kesme em hiltînin.

Ev pêzanînên ku min ji Hecî Mihemed û mala wan wergirtî anî û ji muxtarê Misûriyê, ji Mehmet Bakay re xwend da ku kêmaniyan bibînim û li agahdariyên xwe zêde bikim. Muxtarê me yê hêja pirr dilşad bû kêfa xwe gelekî anî û got; mala te ava te hemî tişt qin bi qinê vekiriye, pesnê nivîsa min da. Lê dîsa jî hin tişt min ji muxtarê xwe wergirt. Ez wan jî li vir pêşkêşî we hêjayan dikim.

Me berê, tiriyê xwe yê şîre li ser tahteke ku hewdekî ji keviran di binyê re çêkirî radixist. Me li ser wê tahtê di telîs û kîsan de ew tiriyê xwe diguvaşt. Ava wî tiriyî ango şîreya ji kîsan diherikî, dikete wî hewdî. Me ji wir bi satilan ew şîre bera neqran dida û dikewidand. Lê nuha em hewdên ji betonê çêdikin. Kewidandin yanî şîrgermî kirina şîreyê ku nivkelî dibû û qirş gemar bi ser diket. Me bi miqeşê ew gemar jî ser digirt. Me ew herrî, gemara ku ji şîreyê diqeşart dixiste kîsan û bi dar de dikir. Me satilek datanî binî ku ew av, şîreya ji kîs dadinisilî careka din li neqrê vedigerand. Ew herrî û pirrika di kîs de mayî êdî ya avêtinê bû, me dirijand. Kîsên xwe dişûşt û ji bo bikaranîna careke din hiltanî.

Min ji muxtar pirsa miqeşê kir; got doxa wê dirêj, serê wê fireh, girover û qulqulî ye ku bi wê kef û gil û gemar ji ser şîreyê digirtin ango wek Hecî Mihemed gotî diqeşartin. Tişta min jê fehm kir, kevgîra mezin e.

Her weha, muxtarê dilovan, kar û berpirsiyariyên xwe hemî li aliyekî hişt û bi pirsên min ve daket. Dilê xwe bijand vê xebata hêja û xwest ji dil alikariya min bike. Bi berdewamî, tevdan-lihevxistina şîreyê gelekî girîng dît ku divê bihête nivîsandin. Dema me ardê xwe, arvan diavêt nav şîreyê, me dest bi tevdanê dikir. Hem agir di bin neqrê de ye û hem jî em li ser hev bi darekî şîreyê li hev dixin. Divê agir nerm be, yanî ne agirekî gûrr be û li ser hev ew şîre were tevdan, lihevxistin. Darikê pelûlê, ew darê ku pê pelûlê li hev dixin, darekî wek doxa merrekê ye, serê wî befşikî, pan e. Serê wî darê befşikî carinan bi sifir ango bi paxir dihate kiras kirin da ku tama pelûlê xera neke. Em her serê wî darikê pelûlê li binê neqrê dibin û tînin da ku binî negire, nebe girêk û neşewite.

**Beran, bêcik:** darikên mêwan qul dikirin û darikên ziravtir tê re derbasdikirin, dixistin temtêla tişt û tebayên dilên wan dixwest, qinên gwîza dixistin qirika wan, bi gwîzan dixemilandin û di pelûlê de dikirin. Wek: beran, mirov, dîk hwd.

**Qumaşk:** Bi çirpiyên ji hinarê yan ji belalûkê şivên nerm wek sê xelekên girover di ser hev re li darikên **silêvî** li hev suwar dikirin. Dîsa bi gwîzan guluk pê ve dikirin, dixemilandin, çend caran di pelûlê dadikirin. Dibû selikeke ji pelûlê û ji gwîzan, pê dilê zarokan şad dikirin û carinan hundurê wê jî bi qin û çerezan dadigirtin.

**Mewîj:** Tiriyên di rez de dimînin didin hev, berhev dikin. Helbet tiryên mewîjan cihê ye. Jê re tiryê cînas dibêjin. Cînas cureyekî tiryên xweşik e, baş e, zû digihê, namîne payiza paşîn. Tiriyên mayî diçinin, tînin li miştaxan radixin, libên xerabe jê dineqînin. Yên paqij û neqandî bi hinek zeyta zeytûnan û ava bi ariya êzingan kelandî, dişon û dixin selikên çirpî. Ew tiriyên mewîjan yê paqij û neqandî, di wê sepetê de dikin û li miştaxê radixin. Heta ew tirî zuha bibe li ser miştaxan raxistî dimînin. Zuhabûn, li gora tîna rojê, ji hefteyekê heta bi deh rojan diajo. Piştî zuha bû, didin hev dîsa dixin selikan û ava paqij lê dikin, dişon. Piştî şûştinê li ser paçikên paqij radixin heta zuha dibe. Piştî zuhabûnê li serradê dixin, ji darik û kirşan paqij dikin û hiltînin.

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| dema kergê: dema mehserê | bağbozumu zamanı | période des vendanges | vintage season |
| mehser, masere, isle, ûsil, îsir | şırahane, üzüm şırasının çıkarıldığı yer | pressoir à raisin, emplacement du pressoir | the place where grapes are crashed to produce syrup |
| mehsere | üzümün sıkılarak şırasını çıkarma işlemi | pressurage | crashing or squeezing of the grapes to produce syrup |
| miştaxe | üzüm kurutma yeri | emplacement du séchage des raisins | a place where grape are left to dry in order to produce raisin |
| kewidandin | üzüm şırasını ısıtmak | bouillir le jus de raisin | to boil the grape juice |
| tirîyê mezrone | şıra üzümü | chasselas | chasselas |
| qutif, çirtim, siqil, tilmist | cıngıl | grapillon | a part of a cluster |
| şîre | şıra | jus de raisin pressé | concentrated syrup |
| efara tirî: paşerok | bağ bozumu artığı | résidus de vendanges | leftover of harvest |
| esirandin, givaştin | sıkmak | presser, pressurer | to squeeze |
| keşmûn, pap, simarte, sîmirte | posa | lie de raisin | dregs |
| neqir, niqre, dist | büyük kazan | chaudron | large cauldron |
| moçik | uzun sapli tas | louche | big and deep ladle |
| naşor, cabon, japon, çapon | amerikan bezi | étoffe en coton blanc | american cloth |
| aqûl, heçîk, çelake | çengel | crochet, croc | hook |
| miqeş, kefgîra mezin | büyük kevgir | grand écumoire | large skimmer |
| tiryê cînas | cins üzüm | variété de raisin de qualité | a noble sorts of grape |
| qin, kakil | ceviz, badem gibi yemişlerin içi | cerneau | kernel |



*Tirîyên mezrone chasselas grapes*



***Helîl – kesme-pelît-peksîmet :** confection or delicacy made of grape juice and flour*



***Mewîj:** raisin*



***Dims – mot-doşav - difs:** boiled grape juice*



***Benî –meşlûr - orcix - sicûq - sincix - kome - şaran:** confection of nuts dipped in grapes juice*



*Bastêq: fruit pulp dried in thin layers*

# Balindeyên li Kurdistanê

## - II -

**Amadekar: Îsmaîl TAHA ŞAHÎN**

| kurdî | latînî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|---|
| başkulok | *saxicola torquata* | taş kuşu | tarier pâtre, traquet pâtre | african stonechat |
| serqelûnk, belg, qîrik | *phoenicurus ochruros* | kara kızılkuyruk | rouge-queue noir | black redstart |
| bilbil, hizar | *luscinia megarhynchos* | bülbül | rossignol | nightingale |
| dûvsork, kurîsork, dûvsoran, bûkesor, dûbilindik, dûlesorik, kurîreprepînk, kurîfitfitînk, terîsorik, dwîhelînk, pitpitok, pit, boqsor | *cercotrichas galactotes* | çalı bülbülü, pas renkli çalı kızıl gerdanı | agrobate roux | rufous, tailed scrub robin |
| bersorik, berçêlsorik, binhefsorik, behefsorik, bûksoran, cwîsorik, melak, melasorik, qurimdar | *erithacus rubecula* | kızılgerdan | rouge-gorge | european robin |
| bindehlok | *cettia cetti* | kamış bülbülü | fauvettes des roseaux, phragmite, bouscarle de cetti | cetti's warbler |
| xiçik | *acrocephalus melanopogon* | bıyıklı kamışçın | lusciniole à moustaches | moustached warbler |
| çûçeşîn | *hippolais pallida* | ak mukallit | fauvette pâle | eastern olivaceous warbler |
| serreşik | *sylvia atricapilla* | karabaş ötleğen | fauvette à tête noire | eurasian blackcap |
| hejîrok | *sylvia borin* | boz ötleğen | fauvette des jardins | garden warbler |
| têltenbûrik | *scotocerca inquieta* | sürmeli çalı ötleğeni | dromoïque vif argent | streaked scrub warbler |
| sîçipk | *phylloscopus trochilus* | söğütbülbülü | pouillot fitis | willow warbler |
| çirkone, çilmêrik, çilmêre, dehlîk, bintanik, wincik | *phylloscopus collybita* | bayağı çıvgın | pouillot véloce | common chiffchaff |
| çeqçeqok, kezanok, çixçixk, çikçikan | *muscicapa striata* | benekli sinekkapan | gobe-mouche gris | spotted flycatcher |
| belakîtik, gumgumî | *ficedula albicollis* | halkalı sinekkapan | gobe-mouche à collier | collared flycatcher |
| poşîreşk, mamreşik, êtîmok: | *parus major* | büyük baştankara | mésange charbonnière | great tit |
| serşînk, seraşînok, xecxecok | *parus caerulus* | mavi baştankara | mésange bleue | eursaian blue tit |
| pispilk, tilîxwerk, dûvçinarik | *remiz pendulinus* | bayağı çulha kuşu | rémiz penduline | eurasian penduline tit |
| berkute, belîkute, berkure, belîşte, fiştik, toteber, toteberk | *sitta tephronota* | büyük kaya sıvacı kuşu | sittelle des rochers | persian nuthatch |
| kevirhilperk, teyirkê kevran | *tichodroma muraria* | duvar tırmaşık kuşu | grimpereau échelette | wallcreeper |
| çirçirok, çirçirk, çirçiradînk, garisok, cit, diç, sîlîl, hinbank | *emberiza calandra* | tarla kiraz kuşu | bruant proyer | corn bunting |
| çûka zer, zerwêleyê cehan, beyarok, çîçilo, çûkzer, çûçezer, tûtre'êl, zerolî, berzere | *emberiza melanocephala* | kara başlı çinte | bruant mélanocéphale | blackheaded bunting |
| kezwankelotik | *coccothraustes coccothraustes* | bayağı kocabaş | gros-bec, casse-noyaux | hawfinch |
| zengulîtik, zengilok, zengulîlat, zengilîle, kilîlmilîl, belingosik, serxûnik | *carduelis carduelis* | saka kuşu | chardonneret élégant | goldfinch |
| serstirîk, çûçika têvrîyan | *carduelis cannabina* | keten kuşu | linotte mélodieuse | common linnet |
| sivyankê çolê | *passer hispaniolensis* | söğüt serçesi | moineau espagnol | spanish sparrow |
| sêdidank | *petronia petronia* | kaya serçesi | moineau soulcie | rock sparrow |
| reşîşik, zerzûrî, gwîbijînk, reşwêle, reşolî, reşçêle | *sturnus vulgaris* | sığırcık | étourneau sansonnet | starling |
| teyirkulî, xezayî, xezayîk, xezalok | *sturnus roseus* | ala sığırcık | étourneau roselin | rosy starling |
| zerwêle, zerwêleyê şamî, zerwêlê xatûnî, zerêle, pîropîro, tuyotuyo, tiyopiyo, silobapîro | *oriolus oriolus* | bayağı sarıasma | loriot d'Europe | eurasian golden oriole |
| qirgurg, qira kelexan, qijak | *corvus corax* | karakarga | grand corbeau | common raven |
| qelereşk, kelebeş | *corvus corone* | leş kargası | corneille noire | carrion crow |
| qir, qirika belek, qirbelek, qelegewir, qirgewrik | *corvus cornix* | başlıklı karga | corneille mantelée | hooded crow |
| qirereşka ziyanan, qirereşik, qelexirab, qelexurav | *corvus frugilegus* | ekin kargası | corbeau freux | rook |
| qijqelank, qelqîşk, qelespîk, qelebask, qijqel, dûvdirêj, qijok | *pica pica* | avrupa saksağanı | pie bavarde | eurasian magpie |
| şirkak, kirrkak, kirrkewk, çilkak, alik | *garrulus glandarius* | bayağı alakarga | geai des chênes | eurasian jay |
| qaqîşk, qelqîj, qelqijk, qijyank, qaqwîşk | *pyrrhocorax* | kırmızı gagalı dağ kargası | crave à bec rouge | chough |

**Balindeyên malî**

| | | | | |
|---|---|---|---|---|
| mirîşk | *gallus gallus domesticus* | tavuk | poule | chicken |
| 'elok,'elelok, culux, qulî, qulîqulî, antax, mirîşka şamî, şamî, hindî | *meleagris gallopavo* | hindi | dindon sauvage | turkey |
| mirîşka fîr'ewnî | *numida meleagris* | yabani beçtavuğu | pintade de numidie | helmeted guineafowl |

**Hin bilindeyên biyanî yên naskirî**

| | | | | |
|---|---|---|---|---|
| tawis | *afropavo congensis* | tavus | paon | peacock |
| totîk, tûtik, tolî | *psittacula krameri* | papağan | perroquet | parrot |
| kerdîkil | *Struthio camelus* | devekuşu | autruche | ostrich |



başkulok - *saxicola torquata*

serqelûnk, belg, qîrik - *phoenicurus ochruros*



bilbil, hizar - *luscinia megarhynchos*

dûvsork, kurîsork, dûvsoran, bûkesor, dûbilindik, dûlesorik, kurîreprepînk, kurîfitfitînk, terîsorik, dwîhelînk, pitpitok, pit, boqsor - *cercotrichas galactotes*



bersorik, berçêlsorik, binhefsorik, behefsorik, bûksoran, cwîsorik, melak, melasorik, qurimdar - *erithacus rubecula*



bindehlok - *cettia cetti*



xiçik - *acrocephalus melanopogon*



çûçeşîn - *hippolais pallida*



serreşik - *sylvia atricapilla*



hejîrok - *sylvia borin*



têltenbûrik - *scotocerca inquieta*



sîçipk - *phylloscopus trochilus*



çirkone, çilmêrik, çilmêre, dehlîk, bintanik, wincik - *phylloscopus collybita*



çeqçeqok, kezanok, çixçixk, çikçikan - *muscicapa striata*



belakîtik, gumgumî - *ficedula albicollis*



poşîreşk, mamreşik, êtîmok - *parus major*



serşînk, seraşînok, xecxecok - *parus caerulus*



pispilk, tilîxwerk, dûvçinarik - *remiz pendulinus*



berkute, belîkute, berkure, belîşte, fiştik, toteber, toteberk - *sitta tephronota*



kevirhilperk, teyirkê kevran - *tichodroma muraria*



çirçirok, çirçirk, çirçiradînk, garisok, cit, diç, sîlîl, hinbank - *emberiza calandra*



çûka zer, zerwêleyê cehan, beyarok, çîçilo, çûkzer, çûçezer, tûtre'êl, zerolî, berzere - *emberiza melanocephala*



kezwankelotik - *coccothraustes coccothraustes*



zengulîtik, zengilok, zengulîlat, zengilîle, kilîlmilîl, belingosik, serxûnik - *carduelis carduelis*



serstirîk, çûçika têvrîyan - *carduelis cannabina*



sivyankê çolê - *passer hispaniolensis*



sêdidank - *petronia petronia*



reşîşik, zerzûrî, gwîbijînk, reşwêle, reşolî, reşçêle - *sturnus vulgaris*



teyirkulî, xezayî, xezayîk, xezalok - *sturnus roseus*



zerwêle, zerwêleyê şamî, zerwêlê xatûnî, zerêle, pîropîro, tuyotuyo, tiyopiyo, silobapîro - *oriolus oriolus*



qirgurg, qira kelexan, qijak - *corvus corax*



qelereşk, kelebeş - *corvus corone*



qir, qirika belek, qirbelek, qelegewir, qirgewrik - *corvus cornix*



qirereşka ziyanan, qirereşik, qelexirab, qelexurav - *corvus frugilegus*



qijqelank, qelqîşk, qelespîk, qelebask, qijqel, dûvdirêj, qijok - *pica pica*



şirkak, kirrkak, kirrkewk, çilkak, alik - *garrulus glandarius*



qaqîşk, qelqîj, qelqijk, qijyank, qaqwîşk - *pyrrhocorax*

## Balindeyên malî



mirîşk - *gallus gallus domes-ticus*



'elok,'elelok, culux, qulî, qulîqulî, antax, mirîşka, şamî, şamî, hindî - *meleagris gallopavo*



mirîşka fîr'ewnî - *numida meleagris*

## Hin bilindeyên biyanî yên naskirî



tawis - *afropavo congensis*



totîk, tûtik, tolî - *psittacula krameri*

kerdîkil - *struthio camelus*

# Endamên laşên çûkan




Amadekar: Îsmaîl TAHA ŞAHÎN

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilizî |
|---|---|---|---|
| enî | alın | front | front |
| alek, rû | yanak | joue | cheek |
| nikil | gaga | bec | beak |
| banê serî | tepe | sommet du crâne | top of head |
| patik | ense | nuque | back of the head |
| navmil | omuz | partie inter-scapulaire | interscapular area |
| pişt | sırt | dos | back |
| binpişt, qaçik | kuyruk sokumu | bas du dos | low back |
| dûv, kurî, boçik, terî | kuyruk | queue | tail |
| bindûv | altkuyruk | croupion | vent |
| şaper | uçuş tüyleri | rémige | primary remigez |
| tenişt, tehêl, kêlek | yan göğüs | flanc | flank |
| roq, çîp | kuş bacağının üçüncü bölütü | tarse | tarsus |
| penc | pençe | griffe | clow |
| ran, hêt | but | cuisse | thigh |
| zik | karın | ventre | belly |
| serçeng | kanat ucu | extrémité de l'aile | manus |
| berçêlk, qûtildank, bertork | kursak | jabot | crop |
| guhik | kulakçık | oreillette | auricle |
| qirik | boğaz | gorge | throat |
| erzink | çene | menton | chin |

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| mejî, mêjî | beyin | cerveau | brain |
| sorîçk, sorsork | yemek borusu | œsophage | oesophagus |
| kirkirk | soluk borusu | trachée | trachea |
| berçêlk, qûtildank, bertork | kursak | jabot | crop |
| dil | kalp | cœur | heart |
| cerg, ciger, mêlak, kezeb | karaciğer | foie | liver |
| rûvîk, rovî, rûdî | bağırsak | intestin | intestine |
| botir, pind | kloak | anat. cloaque | cloaca |
| gulçîsk, gurçîsk, gurçik, guhçîlik | böbrek | rein | kidney |
| malhêk, hêkdank | yumurtalık | ovaire | ovary |
| ûrik, kursîdank, destarok, aşik | taşlık | gésier | gizzard |
| piş, pişik, sih, sîpelk | akciğer | poumon | lung |




# Hin peyvên kêmnas – nenas

## - V -

Amadekar: Reşo ZÎLAN

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| navçît: benpork, pê kezîyên xwe girê didin | örük bağı | ruban pour nouer les nattes de cheveux | hair ribbon |
| navrewan: navran, di şalwar de sêkuja di navbera herdu lingan de | apışlık | entrejambe du pantalon, du pantalon bouffant | a piece of cloth in a trouser covering crotch |
| teberzîn | teber | hallebarde | halberd |
| nefsmezin: qure | havalı | arrogant, prétentieux | arrogant, self-important |
| nehêre | yayık | baratte | a churn |
| nîçkirin | fondip | action de boire (cul sec) | quaff |
| nîç kirin | fondip yapmak | boire (cul sec) | to quaff |
| niyas: nas | tanıdık | relation, connaissance | acquainted |
| berniyas, bernas | tanınan, bilinen | familier, connu | familiar, know |
| pale pûse: pel û pot, pizgur, pilî pirtî | pılıpırtı | bric-à-brac | junk, clobber |
| palebetalk: şeytanmijûlk, karbetalk, şivanşitexilînk | çalışan birini oyalamak veya dikkatini dağıtmak | chose ou élément qui distrait du travail, distraction | distractor or distraction from serious work |
| palor: palûl, mijane, mijank | kızağın boyunduruk bağlantı çubukları | bâtonnets de connexion de l'axe du traîneau | yoke's rod ? |
| paloş: pelax, pelex | kurutulmuş ot | herbe sèche | dryed gras |
| paşedîn | arı kovanlığı | rucher | apirary |
| pêberjêr | yokuş aşağı | descente | downhill |
| pêberjor | yokuş yukarı | montée | uphill |
| pêgirtek | 1. merdiven korkuluğu, 2. parmaklık | rampe de l'escalier, ballustrade | 1. staircase, 2. railing |
| pêhevraz | yokuş yukarı | montée | uphill |
| peletî: pele'ewir, pel, pelt, pelta ewir | bulut parçası | un bout de nuage | clouds part |
| pêrê: rêbizink, êkpê | patika | sentier, sente, sentier de chèvre | hiking ??? |
| perese bûn: terebera bûn, tarovaro bûn, bijale bûn, pijale bûn, belawela bûn | darmadağın olmak | être sans dessus-dessous, être éparpillé | to be scattered |
| perese: terebera, tarovaro, bijale, pijale, belawela | darmadağın | éparpillé, en désordre | scatterd |
| pêvend kirin: aşle kirin, patrome (petreme, petirme, metirme) kirin | aşılamak | greffer, transplanter | to graft, transplant |
| pêvend | aşılama | greffe, transplantation | graft, transplant |
| pêxîk: taq | kör pencere | niche (dans le mur) | niche |
| bargîn: bargîr, beygîr | beygir | rosse, cheval de somme | packhorse |

| | | | |
|---|---|---|---|
| pêxim lê xistin: pêyê xwe lê xistin | sekte vurmak | empêcher, entraver, interrompre, suspendre | to impede, to interrupt, to block |
| pêxim | sekte | interruption, suspension, arrêt | standstill, failure, interruption |
| peyîk | peyk: şalvarda apışlık uzantısı | entre-jambe ample du pantalon bouffant | baggy part of a pair of shalvar |
| pîngal: hêlîvank, motik, pînekal | fol | pondoir | poultry nest egg |
| pîngaz | tavuğun yuva dışında yumurtladığı yer | lieu où les poules pondent à l’extérieur du nid | place the hen lays her eggs outside the nest |
| barîbûyî, bacêle | yuva dışında ya da gizli bir yerde yumurtlayan tavuk | poule qui pond hors du nid ou dans des endroits cachés | the hen that lays eggs out of her nest or in secret places |
| qeb xwastin: meydan xwastin | meydan okumak | défier | to challenge |
| qeb: hevrik | rakip | rival, concurrent | competitor |
| rax: best<br>“raxa çêm” | yatak (ırmak vs için), | lit<br>lit de rivière | <br>river bed |
| semax<br><filankes mirovekî semax e> | oturaklı, ağırbaşlı | sérieux, solennel, tenace<br>(qqn est un homme sobre) | sober, solemn |
| sengolik: sengol, singol, singole | bir yaşını doldurmuş dana | veau d’un an | one year old calf |
| sengole | (mecazi) tonbul genç | adolescent dodu, | an obese teenager |
| sûs girtin: jeng girtin | paslanmak | rouiller | to rust |
| şatik (Qoçgirî) | ense | nuque | nape |
| şay | oyunda eş | partenaire de jeu | fellow-players |
| şeh | tüfekte fişeklerin sürülerek takılan yaylı altlık | chargeur à ressors d’arme à feu | magazine |
| şel: şîl:<br><şelek bûz> perçe | parça<br>”buz parçası” | morceau, motte<br>« bloc de glace » | piece<br>“a piece of ice” |
| şelal: firk, fir, sêrek | seyrek | clairsemé, espacé | sparse |
| şêrgul: bijîya şêr | aslan yelesi | crinière de lion | lion's mane |
| şetele:<br><şetele ket nav pêz> | 1. çığ, 2. bela, felaket, musibet | 1. avalanche, 2. calamité, désastre | 1. avalanche, 2. trouble, calamity, disaster |
| şewe, şeb | göztaşı | sulfate de cuivre | copper sulfate |
| şewşibandin | yalpalamak | tituber, chanceler | to lurch |
| şirne: qîl, limbûz, lembûz, limûz | fil veya vahşi domuz dişi | défense (de sanglier) | ivory, tusks |

# Hin Peyv ji pirtûkên Xelîfe Ûsiv

## - 1 -

**Amadekar: Omîdê Mistefayê CELALÎ**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **Eqîda Îmanê** | | | |
| tuneyî: çuneyî | adem, yok (yoktan) | néant | nothingness |
| xudanruh: giyandar | canlı varlık | vivant, être vivant | living being |
| destbilindkirin: destvegirtin, destraberkirin | dua için el açmak | le fait de lever les mains pour la prière | raising hends in prayers |
| adetî: ji rêzê, edetî | sıradan, bayağı, olağan | usuel, ordinaire | normal, ordinary |
| **Xutbe** | | | |
| dehyek: ji dehan yek | onda bir | un dixième | one tenth |
| **Feraîz** | | | |
| bêparî: zirbehrî, zirbarî | mahrum bırakma / etme | privation | deprivation |
| xudanferz: xwedanê pareke mîrateyê: mîratgir, mîratxwer, wêris | mirasçı, kalıtçı | héritier | heir |
| navdan: binavkirin | adlandırmak | nommer | to name |
| **Teqrîz** | | | |
| kûtxwer: kurtêlxwer | yiyici | vénal | venal |
| bêbiha: bêqîmet | değersiz | sans valeur, vil | worthless |
| xudanbiha: biqîmet | değerli | précieux, qui a de la valeur | worthy, valuable |
| kêmbiha | ucuz, değeri düşük | bon marché | cheap |
| palan: kurtan, semerê keran | semer | bât | packsaddle |
| pêç: şaşik<br><ji serî veke pêç û emamet,<br>xudê nedaye wî bext û seadet> | sarik | turban | turban |
| bihîn= bihîstin <ger nebihin> ez dibihim, min bihî | duymak | entendre | to hear |
| nav mela: bi nav mela ye, qaşo mela | sözde molla | il n’a de mollah que le nom, soit disant mollah | so-called molla |
| bêçav: çavkor, kor, kore, nebîna | kör | aveugle | blind |
| payende: <dinya ne payende û baqî ye> | destek, dayanak | durable | enduring, eternal, long-lasting |
| can: ciwan <mizgîn li we be ey pîr û cana, çi kesê wê bixwîne dibe feqîh û zana> | genç | jeune | young |
| şorezar: şorekî, şorak, şoregeh | çorak arazi | terre infertile à cause de la salinisation | barren land |
| serece: cizama keran:<br><zen dikin li wan rabûye serce> | eşek cüzzamı | lèpre des ânes<br>”ils croyaient avoir contracté la lèpre des ânes” | leprosy of donkeys |

# Heşare

**Amadekar: Eyûb Sînan KIRAN**

| kurdi | latînî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|---|
| heşare | *insectum* | haşere | insecte | ınsect |
| kurmê daran ê sor | *cossus cossus* | ağaç kızılkurdu | cossus, gâte-bois | larva of goat moth |
| kurmê daran ê zer | *zeuzera pyrina* | ağaç sarıkurdu | zeuzère du poirier | larva of leopard moth |
| spîyê gezoya bîstanan | *aphis gossypii* | pamuk yaprak biti | puceron du cotonnier | cotton aphid |
| spîyê gezoya gulan | *aphis rosae* | gül yaprakbiti(gül afidi) | puceron vert du rosier | rose aphid |
| spîyê pelên gûzan | *callaphis juglandis* | ceviz yaprak biti | puceron du noyer | walnut aphid |
| spîyê pelên teneyî (dexl) | *rhopalosiphum padi* | ekin yaprak bitleri | | the bird cherry-oat aphid |
| spîyê simbilên (gulîyên) genimî | *sitobion avenae* | hububat yaprak biti | puceron du noyer | the english grain aphid |
| spîyê pelên genimî | *schizaphis graminum* | buğday yaprak biti | puceron de céréales | spring grain aphid |
| spîyê pelên xoxan | *myzus persicae* | şeftali yaprak biti | puceron vert du pêcher | green peach aphid |
| spîyê koka nîskan | *smynthurodes betae* | mercimek kök biti | puceron de la racine de lentilles | bean root aphid |
| kurmê baqilkan | *bruchus rufimanus* | bakla tohum böceği | charançon de pois | broad bean weevil |
| kurmê nîskan | *bruchus lentis bruchus ervi* | mercimek tohum böceği | zabre de graines de lentilles | lentil seed beetle |
| kurmê pelên genimî | *tinea granella* | buğday güvesi | teigne des grains | corn moth |
| kurmê koka teneyî (dexl) | *zabrus tenebrioides* | ekin kamburböceği | zabre des céréales | corn ground beetle |
| spîyê genimî | *sitophilus granarius* | buğday biti | charançon du blé | weat weevil |
| spîyê birincî | *sitophilus oryzae* | pirinç biti | charançon du riz | rice weevil |
| maşotê nokan | *heliothis dipsacea* | domates yeşilkurdu | leucanie | marbled clover |
| maşotê gûzika pembûyî | *helicoverpa armigera* | pamuk yeşilkurdu | ver de coton | cotton bollworm |
| maşotê pelên pembûyî | *spodoptera littoralis* | pamuk yaprak kurdu | noctuelle méditerranéenne | egyptian cotton leafworm |
| maşotê pembûyî | *spodoptera exigua* | çizgili yaprak kurdu | légionnaire de la betterave | beet armyworm |
| kurmê gindoran (petêx) | *myiopardalis pardalina* | kavun sineği | mouche de melon | melon fly |
| kurmê fistiqan | *eurytoma pistacia* | fıstık içkurdu | | eurytoma |
| qoşnîla koka nîskan | *porphyrophora polonica* | mercimek kökkoşnili | chenille de lentilles | polish cochineal |
| kurmê şitlê sebzeyan | *agrotis segetum* | bozkurt | noctuelle des moissons | turnip moth |
| tevnepîrka pembûyî | *tetranychus urticae* | iki noktalı kırmızı örümcek | tétranyque à deux points, | twospotted spider mite. |
| tevnepîrka pembûyî ya sor | *tetranychus cinnabarinus* | kırmızı örümcek | araignée rouge du cotonnier | the carmine spider mite, |
| kurmê gûşîyên tirîyan | *lobesia botrana* | salkım güvesi | eudémis de la vigne | european grapevine moth |
| maşotê çêreyê | *pyrausta sticticalis* | çayır tırtılı | chenille des près | meadow caterpillar?? |
| qimilê tûyan | *dolycoris baccarum* | dut kımılı | punaise des baies | sloe bug |
| kulîyê kesk | *tettigonia (locusta) viridissima* | yeşil çekirgeler | grande sauterelle verte | great green bush-cricket |
| kulîyê çolê | *schistocerca gregaria* | çöl çekirgesi | criquet pèlerin | desert locust |
| gûstêrk, teyîsteyîsok, teysok, stêrstêrok, agirstênk,zîqzîqok, baranbirk | *lampyris noctiluca* | ateş böceği | lampyre, ver luisant | glow-worm |
| spîyê gurîtîyê | *sarcoptes scabiei* | uyuzböceği | sarcopte | itch mite |


Kurmê daran ê sor - *Cossus cossus*


Kurmê daran ê zer - *Zeuzera pyrina*


Spîyê gezoya bîstanan - *Aphis gossypii*


Spîyê gezoya gulan - *Aphis rosae*


Spîyê pelên gûzan - *Callaphis juglandis*


Spîyê pelên teneyî (danî) - *Rhopalosiphum padi*


Spîyê simbilên (gulîyên) genimî - *Sitobion avenae*


Spîyê pelên genimî - *Schizaphis graminum*


Spîyê pelên xoxan - *Myzus persicae*


Spîyê koka nîskan - *Smynthurodes betae*


Kurmê baqilkan - *Bruchus rufimanus*


Kurmê nîskan - *Bruchus lentis*


Kurmê pelên genimî - *Tinea granella*


Kurmê koka teneyî (dexl) - *Zabrus tenebrioides*


Spîyê genimî - *Sitophilos granarius*


Spîyê birincî - *Sitophilus oryzae*


Maşotê nokan - *Heliothis dipsacea*


Maşotê gûzika pembûyî - *Helicoverpa armigera*


Tevnepîrka pembûyî - *Tetranychus urticae*


Tevnepîrka pembûyî ya sor - *Tetranychus cinnabarinus*


Kurmê gûşîyên tirîyan - *Lobesia botrana*


Maşotê çêreyê - *Pyrausta sticticalis*


Qimilê tûyan - *Dolycoris baccarum*


Kulîyê kesk - *Tettigonia (Locusta) viridissima*


Kulîyê çolê - *Schistocerca gregaria*


Gûstêrk - *Lampyris noctiluca*


Spîyê gurîtîyê - *Sarcoptes scabiei*

# Hinek termên entomolojîyê

**Amadekar: Eyûb Sînan KIRAN**

| **kurdî** | ***latînî*** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|---|
| şehmar, şemar, bijmar, şarmar, zîvzîve, hezarpê, çilpê, pirpêtk | *chilopoda* | çiyanlar | mille-pattes | milipede, centipede |
| kurmê toxuman | *bruchidae* | baklagiller biti | puceron des cosses | bean weevils |
| spîyê biqalik | *diaspididae* | kabuklu bitler | hémiptères | diaspididae, hemitera |
| goştxwer | *carnivora* | etçil | carnivore | carnivora |
| perwanegel | *lepidoptera* | kelebekker | lépidoptère | lepidoptera |
| mêşgel | *diptera* | çiftkanatlılar | diptère | diptera,fly |
| gûzika buhukan | *cocoon, pupa* | böcek mumyaları | cocon | cocoon, pupa |
| xerzê mêşan | | sinek yumurtaları | œuf de moustique | musquito eggs |
| kurmê daran | *cossidae* | ağaç güvesi | zeuzère | cossidae |
| spîyê pelên nebatan | *aphididae* | yaprak biti | aphydés | aphididae |
| neçîrvan | *predator* | avcı | prédateur | predator |
| heşerexwer | *insectivorous* | böceklerle beslenen | insectivore | insectivore |
| giyaxwer | *herbivor* | otçul | herbivore | herbivore |

# Gulûgîyayên Kurdistanê

## - I -

**Amadekar: Ehmedê DIRÎHÎ**

Termînolojîya zanistî ya botanîk û gulûgîyayan xwedî zimanekî pir taybetî ye. Di vê zanistê de her gulûgîyayek xwedî çend navên lipeyhev in. Bo nimûne, wek navê malbatê, navê wan yên xweser, navên varyetê û paşnavê wan.

Gava ku gulûgîyayeke nû yan jî cureyeke wê ya nû tête dîtin, eger berê navê vî cureyî tune be, navê wê yê zanistî li gor prensîpeke zanistî û navneteweyî lê tête kirin. Navê bingehîn dîyar e, lê paşnav û cure ne dîyar e. Zanyar di vê rewşê de çend rêyan didin ber xwe. Yek ew e ku navê kesê ew gulûgîya dîtîye lê bête zêde kirin. Ya din jî, ku piranî li gor vê diçin, navê cihê ku ew lê hatîye dîtin lê, zêde dikin. Ew cih dikare deverek be, bajar yan jî welatek be, yan jî navê xelkekî be. Bi vî rengî ew dibe xwedî navekî nû yê zanistî û temam. Êdî ew nav li gor wê li navenda navneteweyî ya qeydkirina navên zanistî tête nivîsin û dikeve lîsteya katalogan.

Di navên gulûgîyayan de, em dibînin ku gelek navên zanistî hene, ku di bin van navên latînî de hatine nivîsîn: *"Kurdicum, Kurdica, Kurdistanica, Carduchorum/ Karduchorum"*.

Me wisan rast dît ku em wan navan wergerînin kurdî û bikin: Kurdî/… Kurdan, Kurdistanî/ ... Kurdistanê, Kardoxî.

Bo nimûne, *"Tulipa"* heye ku bi kurdî jê re dibêjin -alal, hilale, mêlaq, lale, helal. Lê li Kurdistanê cureyek hatîye dîtin ku jê re gotine *"Tulipa Kurdica"*. Em jî vî navî dikin -*laleya kurdî*-. Heçî peyva lale ye, peyveke kevn ya îranî ye; -alaleg- paşê di farsî û kurdî de bûye -lale/ alal hwd.

Li gor vê, em li jêrê hindek ji wan wergeran pêşkêş dikin.

### *Beşa Kurdicum û Kurdica*

| *latînî* | kurdî |
|---|---|
| *Achillea nobilis subsp kurdica* | Bêwîjan kurdî |
| *Alcea kurdica* | Hêroya kurdî |
| *Anchusa azurea var kurdica* | Gûriza kurdî |
| *Anthemis kurdica* | Beybûna kurdî |
| *Euphorbia kurdica* | Xweşîla kurdî |
| *Fritillaria crassifolia subsp kurdica* | Gulşilêra kurdî |
| *Fritillaria imperialis subsp kurdica* | Gulnixwîna kurdî |
| *Hesperis persica subsp kurdica* | Qaçmûka kurdî |
| *Linum pycnophyllum subsp kurdicum* | Kitana kurdî |
| *Nerium oleander subsp kurdicum* | Rûlika kurdî |

| *latînî* | kurdî |
|---|---|
| *0Ornithogalum kurdicum* | Axbandira kurdî |
| *Orobanche kurdica* | Giyagurga kurdî |
| *Phlomis kurdica* | Sîvanoka /guhbeloka kurdî |
| *Pistacia atlantica subsp kurdica* | Kizwana kurdî |
| *Plantago kurdica* | Belghewêza kurdî |
| *Prunus kurdica* | Êrûga kurdî |
| *Ranunculus kurdicus* | Çûnga kurdî |
| *Thlaspi kurdicum* | Nançûka kurdî |
| *Tragopogon kurdicus* | Spinga kurdî |
| *Tulipa kurdica* | Laleya /alala kurdî |



*Achillea nobilis subsp kurdica*
Bêwîjana kurdî



*Alcea kurdica*
Hêroya kurdî



*Anchusa azurea var kurdica*
Gûriza kurdî



*Anthemis kurdica*
Beybûna kurdî



*Euphorbia kurdica*
Xweşîla kurdî



*Fritillaria crassifolia subsp kurdica*
Gulşilêra kurdî



*Fritillaria imperialis subsp kurdica*
Gulnixwîna kurdî



*Hesperis persica subsp kurdica*
Qaçmûka kurdî



*Linum pycnophyllum subsp kurdicum*
Kitana kurdî



*Nerium oleander subsp kurdicum*
Rûlika kurdî



Axbandira kurdî
*Ornithogalum kurdicum*



*Orobanche kurdica*
Giyagurga kurdî



*Phlomis kurdica*
Sîvanoka - guhbeloka kurdî



*Pistacia atlantica subsp kurdica*
Kizwana kurdî



*Plantago kurdica*
Belghewêza kurdî



*Prunus kurdica*
Êrûga kurdî



*Ranunculus kurdicus*
Çûnga kurdî



*Thlaspi kurdicum*
Nançûka kurdî



*Tragopogon kurdicus*
Spinga kurdî



*Tulipa kurdica*
Laleya - alala kurdî

KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE, supplément du Bulletin de liaison et d'information

*Directeur de la publication :* **Reşo ZÎLAN,** *Réalisation :* **M. HASSAN**

**Kamuran A. BEDIR KHAN**
**Joséfa BERTOLINO**
**Kendal NEZAN**

# Ferhenga KURDÎ - FRANSIZÎ

## PÊŞGOTIN

Ferhenga kurdî-fransizî xwedî dîrokeke dûr û dirêj a ku diçe ta salên 1930an. Di wê demê de, birayên Bedirxan, tevî hin rewşenbîrên kurd ên li Binê Xetê, dest bi tevgera nûjeniya kurmanciyê kiribûn, kovara Hawarê û pirtûkên bi alfabeya xwe ya latînî çap dikirin. Mîr Celadet li ser rêzimana kurmancî û ferhengeke kurdî-kurdî dixebitî. Mîr Kamûran jî dixwest ferhengeke kurdî-fransizî ya berfireh amade bike.

Rêzimana Mîr Celadet, piştî mirina wî ya bêwext, bi destê hevalê wî Roger Lescot hat temam kirin û di sala 1970ê de, li Parîsê, li jêr navê *Grammaire kurde (dialecte kurmandji)* çap bû. Mixabin, temenê Mîr Celadet wefa nekir ku xebata ferhenga xwe ya kurdî-kurdî bibe serî.

Mîr Kamûran di sala 1947an de li Fransayê bicîh bû, û ta 1970ê li Xwendegeha zimanên rojhilatî *(Ecole des langues Orientales)* ya Zanîngeha Parîsê profesoriya ziman û çanda kurdî kir. Mîr, di van salan de çendîn pirtûk li ser rêzimana kurdî û fêrbûna zimanê kurdî weşandin, Qur'an wergerand kurmancî û li ser ferhenga kurdî-fransizî xebitî. Hevjîna wî, Nathalie d'Ossovetzky, ku aristokrateka polonî bû û baş bi rûsî û almanî jî dizanibû ta mirina xwe, di sala 1975an de, alîkariya vê xebatê kir, nexasim ji bo ferheng û çavkaniyên rûsî.

Di sala 1978an de Mîr Kamûran jî piştî nexweşîneke kurt koça dawî kir. Berî wefata xwe jî bo ferhengê bi qasî 25.000 peyv berhev kiribûn û wergerandibûn fransizî. Lê ew di wê baweriyê de bû ku ev xebat nîvcû bû, ji çapê re ne amade bû. Dixwast ku bi hindikî peyvên ku di ferhengên Qanatê Kurdo û Bakaev de hene li ser bên zêde kirin û ferheng bi peyvên soranî û dimilî jî bên dewlemend kirin ta ku bibe ferhengeke hemî zarava û devokên kurdî.

Ev erka giran bi awayekî kete ser milên min.

Amadekirina ferhenga zimanê gelekî ku di coxrafyayeke berfireh, asê û perçekirî de belav bûye, nebûye zimanê dewletê, neketiye nav teşeyên kedî yên normên fermî, bê guman ne karê kesekî û ne jî yê çend salan e. Ji bilî bikaranîna berhevok û ferheng û çavkaniyên nivîskî, xebatên li ser zargotinê, li ser zarava û devokên Kurdistanê û yên civatên kurdî yên dervayî Kurdistanê (Xorasan, Anatolya navîn, Qefqas û hwd.) divêtin.

Ji bo destpêkê me komeke xebatê li Parîsê pêk anî. Tê de: du xwendekarên berê yên Mîr Kamûran, Joséfa Bertolino û Caroline Delassus, hevjîna Roger Lescot, Marlise Lescot, zimannasê kurd Xosrow Ebdullahî û hin welatiyên kurd ên ku li gundan mane, cotkarî, şivanî an jî pîşekarî kirine, bi kurdî mezin bûne û jiyane.

Piştî danîna Enstîtuya kurdî, bergeha me firehtir bû; me dikarî salê du caran zimannas, nivîskar û rojnamevanên kurd ên ji navçeyên cihê yên Kurdistanê bicivînin, li ser pirsên berhevkirina peyvên kurdî yên devokan, yên pîşeyan, yên klasîkên nivîskî û yên zargotiniyê û bikaranînên wan ên îdyomî û methelokî bixebitin. Xebatên *Kurmancî*, li jêr serpereştiya Reşo Zîlan, alîkariyeke hêja dan zelalkirina wateyên gelek peyv û îdyoman û bi vî awayî ferhenga me dewlemendtir kirin. Dîsa, xebata koma *Vate* li ser zaravayê kirdkî, li jêr serpereştiya Malmîsanij, û ferhenga wî, bûn bingehên peyvên dimilkî yên ferhenga kurdî-fransizî.

Di warê soranî ango kurdî ya navendî de me ferhengên kurdî-ingilîzî yên Tewfîq Wehbî û Şefîq Qezaz wekî bingeh zanî, ji wan û ji ferhengên kurdî yên pirzaravayî yên Gîwî Mukriyanî û Hejar Mukriyanî gelek sûd wergirt.

Ji dawiya sedsala XIXan vê de rojhilatnasên rûs û zanayên kurd ên sovyetî û rûsî di gelek waran de xizmeteke mezin dane pêşvebirina kurdnasiyê. Me di xebata xwe de ji Ferhenga kurdî-fransizî *(Dictionnaire kurde-français)* ya Alexandre Jaba, ku di sala 1879an de li Sankt Petersbûrgê çap bûye û ji 15.000 peyvan pêk tê, ji ferhengên kurdî-rûsî yên zanayê kurd ê navdar Qanatê Kurdo, ji ferhengên X. Bakaev û I. Farîzov gelek sûd wergirtiye her weha ji berhevokên hêja yên zargotina kurdî yên zanayên kurd Ordîxan û Celîlê Celîl.

Li Bakurê Kurdistanê jî di niv-sedsala dawîn de ferhengnasiya kurdî pêşve diçe. Piştî ferhenga Yûsif Ziyaedîn Paşa bi wergera tirkî ya M. Emîn Bozarslan, ferhengên kurdî-tirkî yên Musa Anter (1967) û D. Îzolî (1992), Zana Farqînî ferhengên mezin ên tirkî-kurdî (2000) û kurdî-tirkî (2005) amade û çap kirine ku xebatên dewlemend û hêja ne.

Ferhenga kurdî-fransizî ya li destê we yekem ferhenga bi zimanekî biyanî ye ku peyvên ji hemû zarava û devokên kurdî bi wergera wan a fransizî pêşkêşî xwendevanan dike. Tê de bêtir ji 85.000 peyv hatine civandin. Lê ji ber ku hin peyv li gor navçe û devokan bi awayên cuda tên bilêv kirin û lewre hatine dubare kirin hejmara peyvan bi qasî 70.000î ye. Me ev guherteyên devokî bi hêviya ku rojekê bi kêrî lêkolînên li ser *diyalektolojî* ango zaravanasiya kurdî bên xistin nav ferhengê.

Li gor zimanên din ev hejmareke gelek bilind û nîşana dewlemendiyeke mezin e.

Kurdî, nexasim di warên jiyana gundîtiyê, ya cotkarî û xwedîkirina pez û dewaran de, her wisa jî di warê peywendiyên civakî û merivatiyê de pirr zengîn e.

Em carina di warê wergera wan a fransizî de ketin tengasiyê. Zimanê Molière û Voltaire her çend kevn û navdar be jî, ji bo **xezûr** û **zirbav** tenê peyva *beau-père*, ji bo **xesî** û **jinbav**ê peyva *belle-mère*, ji bo **zava** û **kurhilî** *beau-frère*, ji bo **pismam**, **kurxal**, **kurmet**, **kurxaltî**, **amoza** peyva *cousin*, ji bo **dotmam**, **keçxal**, **keçmet**, **keçxaltî** peyva *cousine* bi kar tîne.

Di kurdî de bi dehan peyv li ser teşeyên simbêlan, li ser awayên serî, poz û difn, hwd hene ku li hemberî wan kêm wûşeyên fransizî hene, her weha ji bo navên kar û berxan li gor jî û temenên wan.

Di milê din de, kurdî di warên ramanî, felsefî, zanistî û îdarî de beşeke girîng a peyvên xwe ji zimanên din, bi taybetî ji erebî û fransizî deyn kiriye. Tê de çend sed peyvên yewnanî (bexdenûs, fidan, fistan, îspanax, kilîse, mengene, mermer, qanûn, qelem, hwd.) hene, lê yên tirkî pirr kêm in. Ta ku me kariye, me li ber peyvên ku ji zimanên biyanî ketine nav kurdî rîşeya wan diyar kiriye.

Lê hin peyvên reng e biyanî ketine kirasekî kurdî yê wisa lihevhatî ku reg û rêçikên rêwîtiya wan a dîrokî ji binemala wan a seretayî êdî nexuya ne, li benda lêkolînên etîmolojiyeke zanistî ne.

Piraniya peyvên kurdî *polîsemîk* ango pirwate ne. Wateya wan di nav zeman de, carna jî li gor herêm û navçeyan, li gor civatê û awayê bikaranînê diguhere. Tenê di mînakan de bikaranîna wan dikare têgihîştina wan zelal û ronak bike. Lewre me di vê ferhengê de cihekî fireh daye mînakên bikaranîna peyvan di wateyên wan ên cuda de. Ev nimûne, li gor pêdiviyê, ji çavkaniyên zargotinê, ji gotinên pêşiyan û ji kilam û stranan hatine hilbijartin.

Wekî ingilîzî, kurdî jî pirîcar merem û mebestên xwe, ziravî û nuansên xwe bi formên îdyomî îfade dike. Û me qasî pê zaniye ew îdyom berhev kirine û bi kar anîne.

Ferhengên bêkêmasî, yên ku tevahiya peyv û dewlemendiyên zimanekî bicivînin nîn in. Ferhenga me jî ne îstisna ye; wekî Xanî yê mezin gotiye ji "kemalê dûr e". Peyvên hin devokan, yên ku em ji wateya wan ne ewle bûn, yên nûçêkirî û hêj baş rûneniştî, navên hin giya û çûkan ji ber nebûna agahiyên tekûz di vê çapa yekem a ferhengê de cîh negirtin Em hêvîdar in ku xwendevan û zimannas me ji van kêmasî û şaşiyan agahdar bikin ku çapên pêşerojê kamiltir bin.

Ferheng berhema xebata gelek welatiyên kurd û dostên fransiz e. Navên hin ji wan beşdarên domdar ên xebata amadekirinê, ya xwendin û rastkirinê, di rûpela pêşî ya taybetî de hatine nivîsîn. Em ji hemiyan re ji bo keda wan, her weha ji ferhengnasê fransiz ê navdar Alain Rey ji bo pêşgotina wî, ji *Centre national du livre* (Navenda neteweyî ya pirtûkan) ya Fransayê ji ber arîkariya wê ya ji bo çapa ferhengê spasdar in.

Spasiyeke germ û taybetî ji bo dotmîra me ya wefadar Sînemxan Bedirxan ji bo hevkarî û pistivaniya wê.

Bi vê xebatê me xwast rêza xwe ji zimannas û welaparêzê kurd ê mezin Mîr Kamûran Bedirxan re nîşan bidin, amanca ku di vî warî de dabû ber xwe bibin serî û giyanê wî yê pak şad bikin.

Em hêvîdar in ku ev ferhenga ku tabloyeke berfireh a zimanê kurdî yê zindî, gelerî û edebî tevî dewlemendiyên wî yên zaravayî û devokî pêşkêş dike alîkar be ji bo xwendevanên kurd û fransizîaxêv ên din ji bo çêtir têgihîştina ziman û çanda kurdî.

**Kendal Nezan**

INSTITUT KURDE DE PARIS

Gulana 2017an de derdikeve

# DICTIONNAIRE
# KURDE - FRANÇAIS

# FERHENGA
# KURDÎ - FRANSIZÎ

Sous la direction
de Kendal NEZAN

Préface
d'Alain REY

85 000 entrées

Riveneuve éditions